# Dem dema me ye, heya ezmanan serê xwe bilind bikin. Merbendan biqetînin û bê tirs û dudilî gava xwe bavêjin. Kurdistaneke serbixwe û azad mîna guleke rengîn bi me re dikene


Wêne: Berxwedan

**● Hêza li Silopî hatiye bi cih kirin, ne ji bo parastina Kurdan e. Hebûna wan ji bo parastina dewleta Tirk û çend Kurdên girêdayî wan e.**

**● Li hinde cihan bi aştî, li hinde cihan jî bi şer. Yek caran hevdîtin yek caran jî kuştin, şerê gel ev e.**

**● Milîs kiye? Bi roj cotê xwe dike, bi şev jî çend welatparêzan li dora xwe dicivîne û gund ji xayînan pak dike, êgir berdide mala peyayên dijmin.**

**● Ji çend ketinan netirsin, riya hûn li ser dimeşin riya nemirinê ye.**

**● Bi xwe bimeşin, bi hêza xwe rabine ser piyan, bila kesek ji derve we nemeşîne, dema ku mirov bi xwe nemeşe nikare bi serkeve.**

**● Heya ku em dijminê derve hilînin divê em berî her tiştî dijminê hundir hilînin. Heya tu xayînê di bundir malê de qir nekî, tu nikarî li hember dijminê xwe pir pêşde herî.**

**● Em di bin seroketiya şehîdan de seroketiyê dimeşînin. Serokên rast şehîd in.**

**● Bila dijmin bizanibe, em amade ne ji 30 mîlyonî 15 mîlyonan şehîd bidin.**

**Di 17.8.1991'ê de Serokê ERNK Abdullah OCALAN, li Akademiya Mahsûm KORKMAZ bi hazirbûna bêhtirî 25.000 welatparêzên Kurdistanê 7 saliya dameziranda Artêşa Rizgariya Gelê Kurdistan (ARGK) pîroz kir û axaftineke dîrokî pêşkêşî gelê Kurdistanê kir.**

**Em vê axaftinê bi tevayî di rojnameya Berxwedanê de diweşînin.**

Gelê Kurdistanê,
Welatparwerên Kurd,

Berî her tiştî heft saliya damezirandina ARGK li we tevan pîroz be!

Me dixwest em bi her welatparêzekî re rûnin. Bi hev re li ser pirsa Kurd û Kurdistanê deng bikin. Lê bi rastî em di demeke weha de ne ku, pêwîst e piraniya xebata me di şevê de be. Ji ber ku dijmin kêlî bi kêlî hewl dide xwe, me ji meydanê hilîne. Em nikarin her tiştî bi eşkere bikin. Dîsa jî me xwe tengav kir û me berpirsiyariya we rakir.

Me êvarîn (şeva derbasbûyî) gelek tişt anîne ziman. Em li ser pir pirsan axifîn. Em naxwazin dîsa wê axaftinê vegerînin. A pêwîst ew e ku wê xebat bi serkeve. Ji vê û şun ve jî biryar biryara gel e, ne îmkan e tu kes vê meşa gel bide sekinandin, vî dengê we nizim bike û hêrsa we dabixe.

Divê em delîveyê (fersendê) nedin dijmin û peyayên wan. Ji ber ku di van rojan de ew jî pir kar dikin. Wan jî hev dîtin û biryar girtin. We bi xwe bihîst û dît, li Diyarbekirê bi Hayri Kozakçıoğlu re rûniştin. Ev kes jî, hûn tev dizanin çi dijmin e û çawa şer li dijî me dide meşandin. Li hemberê vê hevdîtina wan gelê Diyarbekirê çi gav avêt? Belê, gelê Diyarbekirê bi şedhezaran di bin ala Partiya Karkerên Kurdistan (PKK) de serî hilda û bi dehan şehîd da.

Dema ku wan kesan bi dijmin re hevdîtin çêkirin, hîna xwîna şehîdan hişk nebûbû. Ev karê wan ê kevin e, li kuderê dijminekî dibînin xwe digihînine wî. Gelo, li Diyarbekirê bi Hayri Kozakçıoğlu re çi gotin? Çi di wê hevdîtina wan a veşartî de hate gotin? Bersiva van pirsan gelekî pêwîst e. Belê, li şûna ku biçin gelê Diyarbekirê bibînin û pişt bidin ber, çûn serokên dijmin dîtin. Neçûn silavek li welatparêzekî jî nedan. Tevî vê yekê jî Amedê di dîroka xwe de cara yekemîn serî hilda û bi serket.

Niha ev kes dibêjin "bila PKK neyê li başûrê Kurdistanê xebatê neke". Yanî PKK jî têkeve ser riya wan. Ji sedî sed îzin ji dijmin girtine û gotina xwe dibêjin. Wan û dijmin biryar standine ku bi hev re êrîşê bînin ser me. Dema ku êrîşê tînin ser me jî, yanî êrîşî gelê Kurd dikin. Ji ber ku gelê Kurd di dîroka xwe de nuh gaveke serkevtî davêje, dixwazin vê meşê birawestînin û dîsa serê gel beçemînin. Êrîşa wan a li ser PKK tê vê wateyê (maneyê). Di nêrîna me de ev xiyaneteke mezin e. Roj bi roj bi dijmin re hevdîtinan çêbikin, biryaran bistînin û pîlanan li dijî me deynin, bê guman ev xiyaneta tewrî mezin e. Belê, divê hûn jî bizanibin di wan hevdîtinên veşartî de çi tê gotin û li ser çi diaxifin.

Ji bo Kurdistanê siyaset weha nabe. Ev ne siyaseta gel e, ev polîtîka dijmin e. Biryara ku di nava hev de distînin jî, li dijî meşa gel e, li dijî şerê gel e, li dijî serxwebûn û azadiya Kurdistanê ye. Tu caran dijmin naxwaze Kurdistaneke serbixwe û azad were damezirandin. Pîlanê datînin ku bi hemû hêza xwe êrîşî me bikin. Ji bo çi û li ser çi armancê? Mirov nikare vê ji bîr bike. Hûn bi xwe jî dibînin, eşkere vê polîtîkê didin meşandin.

Hûn bi hêviyeke mezin xwe li dora me dicivînin û tevlî kerwanê me dibin. Ji ber ku armanca we ya yekemîn serxwebûn û azadiya Kurdistanê ye. Lê hema ew; bi dijmin re hêza xwe dikin yek û êrîşê tînin ser vî kerwanî. Ji bo vê yekê ez dibêjim girîng e hûn hişyar bin, bila haya we ji der û dora we hebe. Bila mîna berê bi navê seroketiyê bi we nelîzin û we ji dijmin re nekin kole.

Ew niha ji dijmin bêhtir li dijî me derdikevin, ji dijmin bêhtir dijmin diparêzin. Ji ber vê yekê ez dibêjim heya ku em dijminê derve hilînin divê em berî her tiştî dijminê hundir hilînin. Heya tu xayînê di bundir malê de qir nekî, tu nikarî li hember dijminê xwe pir pêşde herî. Ev rastiyeke, nayê înkar kirin.

Berê nav li me kiribûn "PKK birakuj e". Birakujî çiye û kî birakujiyê dide meşandin? Xiyanet çiye û kê bi dijmin re pîlan çêkiriye? Hûn bi xwe dibînin, li her derê Kurdistanê gelê Kurd serî hilda. Li Diyarbekirê rabû, li Dihokê rabû û hûn jî rabûn. Êdî gelê Kurd nikare di bin nîrê dijmin de tehmûl bike. Ji bo vê rabûna gel, wan kesan çi kir? Em tiştan ji bîr nakin, dibêjin bila şerê li bakur û başûr were sekinandin, bila salekê şer bisekine, em alîkariya filan faşîstî bikin... Name ji me re şandin, tiştên nivîsandî di dest me de hene.

Niha faşîstên Tirk ên ku li dijî me di şer de ne dibêjin, em ê ji PKK bêhtir li yên ku alîkariya PKK dikin, bidin. Yanî li gel bidin, ev biryara dijmin e. Dijmin naxwaze mirovê Kurd serbest û aza bijî. Ew kes jî, her roj dibêjin em bi vê dewletê re heya dawiyê dost in. Dostaniya bi dijmin re xiyanet e. Dostanî û yekîtiya rastînî bi gel re ye, ne bi dijmin re ye. Niha em bi gelê xwe yê li Kurdistana başûr re yekîtiyê çêdikin, gelê me ye, mafê me heya dawiyê heyê ku em yekîtiyê pêre çêbikin. Ew jî dibêjin, başûr milkê me ye, bila PKK xebata xwe ji xwe re li bakur bike, ew milkê wan e. Kîjan demê wan başûr ji xwe re kirine milk, tapo ji kuderê anîne! Kurdistan perçeyeke, yê perçe kirî dijmin e. Mîna axan in, axayên berê, ev milkê min e, mafê te tune tu li ser bijî. Em vê fikrê mehkûm dikin. Berê li gundan ev tişt hebû, niha li bajaran heye. Ji sedî sed mîna ku dijmin dixwaze.

Ji bo serxwebûn û azadiyê, kar û barê me ye ku em gelê xwe bikin yek, ne tenê li çar perçeyên Kurdistanê, li kuderê dibe bila bibe. Em bêgav in (mejbûr in) li gelê xwe yê bê xwedî, xwedî derkevin. Ew kes jî ne bi gel re, lê bi dijmin re yekîtiya xwe xurt dikin û li dijî yekîtiya gelê Kurd derdikevin.

Me gelek hurmet ji wan re kir, ma em ji wan ditirsiyan? Ma em muhtacê wan bûn..? Na, me got em hinekî wan ji dijmin bi dûrxînin. Me got em başûr û bakur bikin yek, me got em di çiyan de hêza xwe bikin yek û bi hev re hêzeke yekbûyî çêbikin û Kongreya neteweî ya Kurdistanî li darxînin. Dîsa jî yên berpirsiyar hûn, herin bigerin, bixun, vexun... û li jiyana xwe ya kesanî binêrin. Tek ji dijmin qut bibin. Me weha bi wan re got.

Li Kurdistana bakur me gelek şehîd dane, me xwîn rijandiye, mafê wan kesan tune werin xwîna şehîdan pê bikin û hevdîtinan bi dijmin re çebikin. Ên ku bi faşîzma Tirk re şer dikin em in, ên ku çiya tijî pêşmerge kirine jî em in, heke hevdîtin girîng be em ê hevdîtinan çêbikin. Wê hevdîtina me ji bo Kurdistnê be, ne ji bo birêvebirina polîtîka dijmin be. Ne mafê wan kesan e li ser pişta me bi dijmin re rûnin. Me di perçeyê bakur de xebateke dîrokî bi qehremanî kiriye, lê hema wan, fişengek li hember vî dijminî neteqandine, dilopek xwîn nerijandine.

Ew diçin bi rêjîma Enqerê re hevdîtinan çêdikin, çima? Werin bi me re çêbikin, çi bi we gerek be jî em amade ne bidin, werin em yekîtiyê çêbikin û çi alîkarî gerek be em hazir in. Li aliyekî din jî ew ji bo otonomiyê bi dijmin re hevdîtinê çêdikin. Madem rast e, li ser bingeheke wekheviyê ye, bila rûnin. Bila hevdîtin ne li ser pişta me be. Bila ne li ser pişta Kurdan be.

Dibêjin kes li Kurdistana bakur tune ku hevdîtinan bi rêjîma Tirk re çêbike. Ji me bêhtir kes ji bo hevdîtinê li meydanê tune ye. Bi çend nanan dewleta Tirk ew ji xwe re kirine peya. Berê bi dizî digotin em ê êrîşî PKK bikin, niha eşkere dibêjin û dikin.

Wan kesan navek li xwe kirine "Eniya Kurdistanî". Dibêjin em ê bi roj û şev li ser sînor bin, em ê hêza xwe û ya Tirk bikin yek û sînor biparêzin, em ê wê xakê li PKK qedexe bikin. Heke derfet hebin wê siba vî karî bikin. Ji sedî sed ev kar ji Kurdistana bakur re jî xiyanet e, ji ya başûr re jî xiyanet e.

Dewleta Tirk êrîş bire ser Kurdistana başûr û bi hemû hêza xwe lêxist, faşîstên Tirk ne dostên Kurdistana başûr in. Heya niha jî dibêjin "başûrê Îraqê wilayeteke Tirkiyê ye". Bi xwe dibêjin, "çend serok li başûrê Îraqê hene, em ê wan bikin walî, yan jî mendûb..."

Belê wan kesan eşkere bang li dijminê Tirk kirin. Gotin rê ji we re vekiriye, werin derbasî başûr bibin. Rê didin dijmin ku Kurdistana başûr dagîr bikin, rê nadin me ku em gelê Kurd bikin yek. Ev tenê rastiyekê dertîne ber çavan. Meşa bi dijmin re xiyanet e. Em eşkere dibêjin û bang li wan dikin. Ev riya hûn têde dimeşin hevalbendiya bi dijmin re ye, heke hûn dixwazin ji vê riyê derkevin, wê gel we berat bike, partî jî wê we efû bike. Lê hema eger bixwazin meşa xwe berdewam bikin û bi ser me de werin, li bakur dibe, li başûr dibe, tu cuda bûn nîne. Heke xwe bidin ser PKK, biryara we ye û ya me ye jî, em ê berî dijminên derve wan hilînin. Hûn jî; êdî bes e, rastî û nerastiyan, xiyanet û nexiyanetê... ji hev cuda bikin. Ev çend sal in bi we dilîzin! Ev çend sal in her tim we difroşine dijmin. We bi xwe dît, çawa di tengayiyê de gelê Kurdistana başûr li pey xwe hiştin û reviyan. Heke em xwe di nava destên wan de berdin, wê ji niha û şun ve tevayî Kurdistanê vala bikine, ji dijmin û peyayên dijmin bêhtir kes namîne. Wê Kurdistan dîsa di bin hovîtiya dijmin de binale. Wê Kurdistan di nava reşiyeke xerab de bijî. Ji bo vê em her dem dibêjin bi xurtî li ser dîtina serxwebûn û azadiyê bisekinin. Bila ji me bêhtir ev kar ê we be.



Wêne: Berxwedan

Li benda biryara Partiyê nemînin, dema ku we dît xayîn e, lêxin û bikujin, me dijmin bi we da naskirin, we dijminê hundir û der ve baş naskir. Biryara me kuştina xayînan e, biryara me standî jî divê were meşandin. Hûn ê bi xwe biryarê bimeşinin. Biryara şerê gel ev e. Girîng e gel bi xwe, mal bi mal, gund bi gund, bajar bi bajar xwedî li biryarê derkeve. Bila ciwanên we xwe bighînin çiyan û tevlî gêrîlla bibin, ên dixwazin di gund de bimînin, di gund de xebatê bikin, gundên xwe ji xayînan pak bikin ew jî şerekî mezin e. Dora xayînan teng bikin, wan bifetisînin, bila ji nava we birevin. Dema ku werqas kes bibe yek, kî dikare li hemberê bisekine, hûn jî niha bûne yek. Çend gund xwe bighînin hev û xayînên di nava xwe de hilînin. Ev karê we ye. Em ê jî li hember dijminê derve bisekinin û we biparêzin.

Hinek ji we du'an bikin, hinek xwarinê çêbikin, hinek xwarinê bighînin gêrîlla, hinek dikarin lêxin jî. Milîs kiye? Bi roj cotê xwe dike, bi şev jî çend welatparêzan li dora xwe dicivîne û gund ji xayînan pak dike, êgir berdide mala peyayên dijmin. Hûn jî bikin, serçavên xwe veşêrin û bi keviran xayînan bikujin. Niha ev dilîve (fersend) li pêşiya we vebûye. Heya niha ev derfet peydanebûbûn. Berê seroketî ne weha bû. Dema we peyakî dijmin dikuşt, roja duwemîn dewletê hûn digirtin. Niha ne werge, hêza dijmin çirriya, ji çaran yek, an dijmin ma yan nema. Di gund û çiyayên Kurdistanê de hukmê gel dimeşe. Bi şev xwe veşêrin, lêxin û bila we nebînin. Çiyayên Kurdistanê tijî şoreşger in, heke hûn hatine girtin jî, bêjin gêrîllayên PKK hatin lêxistin û dîsa vegeriyan çiyan, lê gerek e hûn neyên girtin.

Di nava malê de, li gund, li tax û qad û bajaran, xayînan di nava xwe de nehêlin. Dixwazî bila birayê we be jî, heke xayîn bû bikujin û bila dilê we pê neşewûte. Heke çavên we bûn, birjînin û lê nepirsin. Divê xiyanetiya hundir berî dijminê derve were hilanîn.

Eger ji pêre şer li dijî wan hate kirin, nebêjin birakujî ye. Nebêjin Kurd Kurdan dikujin. Ev demeke dirêj e me xwe ragirtiye. Divê em bi hev re sloganekê bilind bikin: "Divê berî dijminê derve dijminê hundir were qirkirin". Kêmasiya me heya niha ew bû ku me ev kes qir nekirin. Van gelek ziyan gihandine me. Bila kes nebêje ev du siyaset in, yek a PKK ye û yek jî ya wan e, na! Polîtîka rast yek e. Ew kes siyaseta dijmin dimeşînin. Ji bo vê yekê nebêjin hûn jî partî ne, ew jî partî ne, Kurd in û welatparêz in. Na! Ne rast e, ew ne welatparêz in, îspat heye, ew her roj bi dijmin re radibin û rûdinin, nokeriyê ji dijmin re dikin. Dîsa û her dem em dibêjin, welatparêzî bi vî rengî nabe. Welatparêzî ew e ku tu welêt biparêzî, ne bi dijmin re bibî yek û êrîşî PKK bikî. PKK bi hemû xwîn û canê xwe ji bo parastina welêt şer dike, tu jî bi dijmin re li dijî PKK şer bikî, ev çi welatparêzî ye!

Dibêjin çil partî hene, çima PKK xwe bi tenê li meydanê dibîne? Ev jî ne di cih de ye, PKK xwe bi tenê nabîne, lê hema ev kes nikarin bi PKK re bimeşin, rojê xwe davêjine hembêza dijminekî. Biryara wan a îro û siba nabe yek. Bi vî rengî mirov nikare bi hev re bimeşe. Madem dikarin bi durustî bi me re bimeşin, bila xwe îspat bikin. Me xwe îspat kir, eger me xwe îspat nekiriba we bi vî awahî alîkariya me nedikir. We bi çavên xwe şerên mezin, şehîdên mezin û gavên mezin dîtin. Piştî ku we ev tişt dîtin, hingê we biryar girt. Ji kesên din jî van tiştan bixwazin. Ji wan hesêb bixwazin, bibêjin çil partîno! Çil serokno! We heya niha çi kir? We çiqas û çend serkevtin pêkanîn? Eger îspat nekirin, nebêjine me ev çil partî û çil serok in. Ev ne polîtîk e, ev ne seroketiye. Polîtîk û seroketî ne tiştekî erzan û hêsan e. Em bi rojan birçî, tî, li ber germê û sermê dimînin, lê hema ew, rojeke tenê jî xwe nerihet nakin, xwe kêliyekê jî birçî nahêlin. Ne gengaz e (îmkan e) rojekê di çiyê de sermayê bixun. Seroketî û dîtin bi vî rengî nabe, bi vî awahî mirov xwe dixapîne.

Heya niha gelek dibêjin, divê PKK yekîtiyê bi wan re çêbike. Na! Me gelek caran xwest û em ji bo yekîtiyê li ber wan geriyan, lê hema reviyan û xwe avêtine hembêza dijmin. Ji ber vê yekê û gelek egerên (sebebên) din yekîtiya herî xurt û rast bi we re ye. Hûn ji çil partî xurttir in, hûn sed carî ji çil serok û çil partiyan xurttirin. Gelo, hûn bi hemû derfetên xwe ne bi berxwedanê re ne, ne bi serxwebûn û azadiya Kurdistanê re ne, ne bi şoreşê re ne..? Belê, hûn bi hemû îmkanan bi me re ne. Bi qasî we ew bi berxwedanê re ne? Na! Hûn bi çavên xwe dibînin ku ew ji van tiştan dûr in. Ji ber vê yekê nebêjin, dema ew tune bin yekîtî çênabe, na! Dema ew tunebin yekîtî hîn xurt çêdibe. Ez baş dizanim heke ne ev serokên sexte bana, ne ev partî bana, niha hûn ji mêj bi serketibûn.

Heya ku me weha hûn kirin yek hêz, yek bîr û bawerî, yek armanc, hûn dizanin me çi kir û çi nekir, me çiqas şehîd pêşkêş kirin, bi çi awahî me li çiyan, zindanan, li derve, li vir... li berxweda! Hûn li ser van bingehan bûne yek. Yekîtî bi xwe û ji xweber çênabe. Heya ku yek ji we şehîd nebû, heya dilê we neşewûtî, hûn nebûne yek û we xwe li dora armanca serxwebûn û azadiyê necivand. Yekîtî gaveke mezin e, ji bo vê yekê em dibêjin bi yekîtiya xwe nelîzin, çendî ji dest we tê yekîtiya xwe xurt bikin.

Dîsa em ji vir bangekê dişînin ji ew kesên ku nokeriyê ji dijmin re dikin, ji ew kesên ku çek hilgirtine û li dijî me şer dikin: "Dev ji xiyanetiyê berdin. Çend meh li peşiya we hene, heya dawiya 1991'ê dilîve ji we re heye..." Heke xwe durust nekin. Me biryar standiye, biryara gel jî weha ye. Heya ji dest me were em ê bi ser wan de herin. Em ê qira wan bînin. Her dem fersendên wanî çênabin, îmkanên weha jî bi dest mirov nakevin, heke em sûdan (fêdeyan) jê nebînin, careke din an peyda bibin, an jî nebin.

Ji pêre êrîşa dijmin a xurt li ser gel e. Min di destpêkê de jî got, dijmin dibêje berî PKK em ê êrîşî gel bikin. Çima? Ji ber ku di dîrokê de gelê Kurd cara yekemîn di bin seroketiya xwe de û ji bo xwe serî hildide û gava xwe davêje hundirê dîrokê.

Têye bîra min, demekê digotin, eger PKK xwe bighîne Mêrdînê, Çolamergê... tiştek ji me re namîne. Wê demê jî di bin hezar navên sexte de, KUK... Stêrka Sor û nizanim hîn çi, êrîş anîne ser me. Armanca wan ew bû ku PKK bidin sekinandin. Gelek hevalên me bi destên wan şehîd ketin. Destpêkê me nizanibû ew kîne, li dawiyê em pê hesiyan ku peyayên dijmin in. Belê, digotin: "Aman PKK! mîna şûr e, wê histûyê me jêbike. Girîng e em bi hemû îmkanan li dijî PKK derkevin". Di 1975'an de weha digotin. Hevalê **Hakî KARER** û gelekên din bi destên wan şehîd ketin. Û we dît, li hemberê wê xiyanetê PKK bi serket, yanî gel bi serket.

Li başûrê Kurdistanê jî gel rabû û radibe jî. Li Zaxoyê, li Silêmaniyê, li Kerkûkê, li Dihokê... gel serî hildide û şeroketiya wan napejirîne (qebûl nake). Ew kes jî li hêlekê bi rêjîma Îraqê re hevdîtinan çêdikin, li hêla din jî xwe davêjine hembêza rêjîma Tirkiyê, gel radibe û serî hildide, ew jî bi van hevdîtinan bi hemû hêza xwe hewl didin ku meşa gel bisekinînin. Baş têgihiştin ku li başûr jî çavên gel vedibin, lewma bi dijmin re biryaran distînin.

Ne tenê li dijî me ev kar dan meşandin. Li ser serê we jî çêkirin. Dîsa jî bi serneketin. Berî vê bi demekê li Enqerê bi hev re biryar girtin, belkî li Bexdayê jî biryarê bigirin. Tiştê ku eşkere dibe, daxwaz û aramanca wan ne otonomiye. Min berê jî got gelê Kurd di 1990-1991'ê de derbasî serîhildanê bû, çi li başûr û çi jî li bakur. Ev lihevtinên ku ew bi Amerîka, Europa... û bi tevayî dijminan re çêdikin ji bo vê ye. Dibêjin gel rabû em ê çawa bikin?!

Çi bar tê ser milên we? We berê ew kes serok dihesibandin. Niha hûn têgihiştin ku ne serokên gel in. Ji ber vê yekê divê hûn ji berê bêhtir yekîtiya xwe xurtir bikin. Li her derê xwe bikin yek. Li Kurdistana başûr jî gel xwe nêzîka me dike, çendî ew kes dijminatiya me dikin, gel tevlî kerwanê me dibe û di bin ala PKK de xwe dike yek. We bi xwe dît, dijminê Tirk çawa li vê dawiyê bi balafiran êrîş bire ser Kurdistana başûr, wan fişengek jî li hemberê wan neteqandin, dibe ku rêberî jî ji leşkerên Tirk re kiribin. Lewma gel bi can û bên bervî me tê. Eger em xebata xwe hîn xurt bimeşînin, wê tevayî Kurdên başûrê Kurdistanê tevlî me bibin.

Dema niha, ne dema hevdîtina bi dijmin re ye. Ji bo ku mirov bi polîtîkî pirsên xwe çareser bike û hevdîtinan çêbike, ez her dem weha dibêjim: "Bila dijmin şerê li dijî me bisekinîne, zagonên li dijî me deranî hilîne, hemû mirovê Kurd ên di zindanan de serbest berde, bihêle ku gelê Kurd serbest xebata xwe bike, bi çekê neyê ser gelê Kurd û gelê Kurd bi xwe biryara xwe bide..." Heke dijmin weha bike em ê şer

didin sekinandin. Em ne evîndarên şer in, na! Em dixwazin gelê xwe bikin yek û welatê wî serbixwe bikin. Bi aştî dibe,bi polîtîkî dibe û bi şer dibe, em bi her awahî amade ne. Lê hema yê ku navê me napejirîne, yê ku nahêle em bi zimanê xwe çend gotinan bibêjin, ew dijminê me ye. Bi vî dijminî re, ne bi aştî û ne jî bi polîtîkî hevdîtin çênabe. Eger mirov bixwaze bi vî dijminî re tiştekî bike dibe xiyanet. Dîsa em dibêjin, heke dijmin van mercên (şertên) me bipejirîne em amade ne aniha pêre rûnin. Lê hema dijmin, ne ew kesê ku bikaribe bi me re hevdîtinan çêbike.

Min di axaftina duh de tiştek got. Bila dijmin tu ziyanê negihîne me, em hema çend meha li Kurdistanê bigerin, ez bi xwe di nava gel de bigerim. Bila dijmin jî bigere. Ne pir, hema 6 mehan, bila bihêle em bi polîtîkî di nava gel de bixebitin. Li dawiyê em biryarê bidin gel, gel çi xwest em weha bikin. Ji vê baştir?! Em amade ne bikin, lê hema dijmin newêre bike. Dibêjin PKK ji şer bêhtir tiştekî nas nake, dibêje şer û şer. Bi aştî û polîtîkî naxwaze kar bike, bi demoqrasiyê re nameşe. Min got ev ne rast e. Bila bi ser min de neyê, ez bi tenê çend mehan li Kurdistanê bigerim, tenê bila bi tank û topên xwe bi ser mede neyê, ji bo gerê daxwaza me jê ev e, bila li ser vê bingehê were bi me re rûne. Em çekê jî nateqînin, serbest em di nava gelê Kurdistanê kevin. Ez vê gotinê ji bo wan kesên ku dibêjin PKK tenê sîlehê nasdike, dibêjim. De bila werin bi me re rûnin, kanî li ku ne, diwêrin werin? Tu caran mirovê nemafdar nikare were. Bila kes şaş fêm neke, pirsa me ne ew e ku em dest ji şer berdin. Me ji tunebûnê ev şer peyda kir, ew tunebûna ku yekî nedigot ez Kurd im. Pirs ne ew e em şer dixwazin an naxwazin, mesele ew e em dixwazin rastiya dijmin eşkere bikin, çiye ne çiye. Di nava xwe de eşkere bikin, di cîhanê de eşkere bikin, zor pêwîst e ku em dijminê xwe nas bikin.

Niha ev dijminê me ji cîhanê re dide xuyakirin ku ew dixwaze tiştekî bide Kurdan, lê PKK li pêşiya vê yekê dibe kelem. Ji sedî sed ev ne rast e. Tu caran dewleta Tirk a faşîst alîkariya Kurdan nekiriye û nake jî. Hûn tev dizanin, li Silopî hinek hêz bi cih kirine, di bin navê parastina Kurdên Îraqê ji êrîşên Seddam. Li Kurdistana başûr, ew serok bi rêjîma Îraqê re ji bo otonomiyê roj bi roj hevdîtinan çêdikin. Pir tehlûke li ser 5 mîlyon Kurdên başûr tune. Li Kurdistana bakur nêzîkî 20 mîlyonan Kurd hene, roj bi roj şer di navbera wan û rêjîma Tirk de derdikeve. Heke rast e hûn dixwazin Kurdan biparêzin, hêza xwe têxine navbera Kurdan û Tirkan, bila rê nedin artêşa Tirk ku êrîşê tîne ser Kurdan. Gelo, dikarin bikin? Na, nikarin. Çima nikarin? Ji ber ku ew jî dijmin in. Ev hêza li Silopî hatiye bi cih kirin, ne ji bo parastina Kurdan e. Hebûna wan ji bo parastina dewleta Tirk û çend Kurdên girêdayî wan e. We tevan bihîst û dît vê dawiyê artêşa Tirk gundên Kurdistana başûr gullebaran kirin, ev hêza li Silopî ya ku "Kurdan diparêze" li kuderê bû. Qaşo xwe demoqrat dibînin, aştî û demoqrasiya wan derew e.

Ji berê bêhtir dijmin ji me ditirse. Newêre destekî xwe dirêjî me bike, dibêje ez destekî xwe dirêjî PKK bikin, wê laşê min tev biçe. Ez tim dibêjim, dema ku dijmin destê xwe dirêjî te kir bigire. Ji bo vê yekê, ji her destên dirêjî te dibin re, nebêje ev destên dostanî û aştiyê ne. Dijminê ji mirov dûr, mirov nikare zû lêbide, lê hema dijminê nêzîk mirov dikare xweş lêbide. Ji ber vê yekê mirov hinek destan dikşîne û hinek dîtinan çêdike, şaş nebin, ji bo ku em dijmin nêzîkî xwe bikin û lêxin. Polîtîk ev e, dijmin nêzîkî xwe bike û bi hêrsa şoreşgerî lêxe.

Biryara me, heya serkevtinê şer e. Armanc serxwebûn û azadiya Kurdistanê ye. Ji tunebûnê PKK xwe gihande vê biryarê, ji vê şun ve jî wê ev biryar were meşandin. Li hinde cihan bi aştî, li hinde cihan jî bi şer. Yek caran hevdîtin yek caran jî kuştin. Gereke tektîkên şerê gel gelek bin. Ji her hêlê ve û bi her awahî girîng e şerê me li dijî dijmin were meşandin. Propagende, rêkxistin, slogan û teşhîrkirina dewleta Tirk a faşîst tev ji bo me şer in. Ji we hinekan derfet di dest de hene ku bi çekê li dijî dijmin şer bikin, hinek bi kêran dijmin bikujin, hinek bi keviran dijmin biêşînin, bi çoyekî... Eger ev derfet di dest we de tune ne jî, min berê her dem digot, di dilê xwe de dijmin bikujin. Hûn vê jî nikarin bikin kêmasiyên xwe bikujin. Eger hûn nikarin bi hev re bikin bi tenê bikin. Di mala xwe de, di gundê xwe de, heke we bêhtir karîbû di bajaran de bikin. Dema we dît ev ne bes e, derkevine çiyan, heger we hîn xurttir karibû, seroketiyê bikin. Ev tev tektîkên şerê gel in.

Nebêjin em nikarin tiştekî bikin, her yek ji we dikare tiştekî bike. Bila şer ne tenê karê gêrîlla be, şoreşgerî karê we tevan e. Hûn bêhtir di bin dijmin de ne, hûn bêhtir nêzîkî xayînan in. Hûn di xewê de dikarin pir dijminan bikujin.


Wêne: Berxwedan

Li benda biryara Partiyê nemînin, dema ku we dît xayîn e, lêxin û bikujin, me dijmin bi we da naskirin, we dijminê hundir û der ve baş nas kir. Biryara me kuştina xayînan e, biryara me standî jî divê were meşandin. Hûn ê bi xwe biryarê bimeşînin. Biryara şerê gel ev e. Girîng e gel bi xwe, mal bi mal, gund bi gund, bajar bi bajar xwedî li biryarê derkeve. Bila ciwanên we xwe bighînin çiyan û tevlî gêrîlla bibin, ên dixwazin di gund de bimînin, di gund de xebatê bikin, gundên xwe ji xayînan pak bikin ew jî şerekî mezin e. Dora xayînan teng bikin, wan bifetisînin, bila ji nava we birevin. Dema ku werqas kes bibe yek, kî dikare li hemberê bisekine, hûn jî niha bûne yek. Çend gund xwe bighînin hev û xayînên di nava xwe de hilînin. Ev karê we ye. Em ê jî li hember dijminê derve bisekinin û we biparêzin.

Hinek ji we du'an bikin, hinek xwarinê çêbikin, hinek xwarinê bighînin gêrîlla, hinek dikarin lêxin jî. Milîs kiye? Bi roj cotê xwe dike, bi şev jî çend welatparêzan li dora xwe dicivîne û gund ji xayînan pak dike, êgir beradide mala peyayên dijmin. Hûn jî bikin, ser-çavên xwe veşêrin û bi keviran xayînan bikujin. Niha ev dilîve (fersend) li pêşiya we vebûye. Heya niha ev derfet peyda nebûbûn. Berê seroketî ne weha bû. Dema we peyakî dijmin dikuşt, roja duwemîn dewletê hûn digirtin. Niha ne werge, hêza dijmin çirriya, ji çaran yek, yan dijmin ma yan nema. Di gund û çiyayên Kurdistanê de hukmê gel dimeşe. Bi şev xwe veşêrin, lêxin û bila we nebînin. Çiyayên Kurdistanê tijî şoreşger in, heke hûn hatine girtin jî, bêjin gêrîllayên PKK hatin lêxistin û dîsa vegeriyan çiyan, lê gerek e hûn neyên girtin.

Şerê gel şerê we ye. Hûn ê bi xwe amadekariyê bikin, bi xwe biryarê bigrin û bi xwe jî lêxin. Me ji sedî-deh şer kir, gerek e hûn ji sedî-nod şer bikin. Di şerê gel de ji %90 cih ê we ye û ji %10 cih ê me ye. Heke bi vî awahî em şer nekin em nikarin bi serkevin. Heya ku gel şer neke nikare bi serkeve. Divê şer ne yê PKK tenê be. PKK nikare bêyî şerê gel serkevtinê pêkbîne. Ez ê bi xwe jî ji berê bêhtir û xurttir seroketiyê bikim. Dîsa ev ne bes e. Divê berî her kesî hûn bibêjin "em çi dikin, karê me çiye?" Dema ku mirovek nikaribe li ser lingên xwe bimeşe, yekî din nikare wî heya dawiyê di bin piyan keve û bimeşîne. Ev ne rast e. Bi vî awahî meş çênabe. Niha hûn nuh radibine, heya niha lingên we ne xurt bûn. Dîsa jî we çend gav avêtin. Lê hema niha hûn hinekî xurt bûne, hûn dibêjin em dikarin bimeşin. Ez jî dibêjim netirsin û bimeşin. Zimanê we jî bila ji berê xurttir be, yekîtiya we ji berê xurttir be, eger hûn di şerê xwe de weha bimeşin dinya tev li pêşiya we bisekine jî nikare we bide sekinandin. Ev bêhtirî 20 sal in em nefes bi nefes li ser vê riyê ne, ji bo çi bû? Ji bo ku hûn bibin yek û çend gavan bavêjin. Niha em gihane vê armancê.

Em dibînin ku hûn dikarin bimeşin. Ji ber ku hûn dikarin bimeşin û hêza we bûye yek, wê dijmin ji bo qirkirina we bi hovîtî êrîş bike, îro jî ew tehlûke heye, sibe jî heye. Ji PKK bêhtir wê êrîşî we bikin, ji bo vê yekê hûn ê şer û berxwedana xwe di cih de bikin. Bi ser min de jî pir xurt hatin, lê hema berxwedana me ji êrîşa wan xurttir bû. Dema ku ji hêlekê ve li we xistin, hûn ê li hêla din xwe xurt bikin, îro li we xistin hûn ê siba xwe sax bikin. Nebêjin li me xistin, em êşiyan û nema dikarin rabin. Belkî carekê xurt li wexin, lê hema cara duwemîn hûn ê xurt li wanxin. Bila cara duwemîn jî li wexin, lê hema ji bîr nekin cara sêwemîn sedî-sed dora we ye. Ji çend ketinan netirsin, riya hûn li ser dimeşin riya nemirinê ye. Ji xwe berê Kurd miriye, jiyana ku Kurd têde dijî ne jiyan e, mirin e. Dema ku hûn niha xwe ji vê jiyanê bi dûr dixin, yanî hûn ji mirinê bi dûr dikevin. Mîna ku mercên (şertên) mezhebên olî hene, her weha yên mirovahiyê jî hene. Heya ku mirovê Kurd di nava vî şerî de cih negire nikare bêje ez mirov im. Şerê gel rûmeta Kurd bilind dike.

Ez dixwazim hinekî li ser namûsê jî bisekinim. Mivorê Kurd namûsê şaş dinirxîne. Di nêrîna wî de namûs tenê malbat e, milk e, jin e... dema ku ziyaneke bi çûk dighê milkê wî, xwîna xwe dirjîne, dibêje min namûsa xwe parast. Ji bo bostek erd, ji bo çend gotinan hazir e xwe bide kuştin. Gelê Kurd di bin destên dijmin de ye. Her roj namûsa gelê Kurd tê pelixandin, dijmin heqareta herî mezin bi namûsa me dike. Mala gelê Kurd, Kurdistan di bin lingên dijmin de ye. Kurdistan namûsa gelê Kurd e, li ber çavan riswa dibe, dijmin her roj pê dilîze. Namûsa mezin Kurdistan e, dema ku namûsa mezin neyê parastin, namûsa biçûk nayê parastin. Parastina namûsa mezin jiyan bi xwe ye. Gava ku yek li we zorê dike hûn diçine ber deriyên dadgehan (mehkeman) li ber deriyên dadgehan jî hûn tewanbar û bê maf in. Dijmin her roj heqaretê bi gelê me dike, namûsê jî riswa dike. Di vir de rûmeta mirovê Kurd li kuderê ma! Dema ku azadî tune be, welat tune be, mirov ne serbest be, tu caran mirov nikare malbatê ava bike û zarokan mezin bike, wê tu wan zarokan li ser çi bingehê mezin bikî? Ji bo vê em dibêjin, xebata me namûsê jî diparêze. Ez bi xwe jî ji bo ku rûmeta xwe peyda bikim û biparêzim, min gava xwe avêt. Rûmeta min gel û welat e. Rûmeta yekemîn, min digot gelek heye û welatek heye, ya duwemîn min digot ev welat rizgarbûnê dixwaze, ya sêwemîn min digot ev gel azadiyê dixwaze, ya çaremîn min digot ev bi şer dibe, ya pêncemîn min digot ev bi seroketiya partiyê dibe... Min ev dane ber çavên xwe û gava xwe avêt. Niha ez dikarim bibêjim hebekê ez bi rûmet im. Min jî dikaribû xwe mezin bikira, min jî dikaribû malbat ava bikira, ji gelekan bêhtir jî. Lê hema min nekir. Heya niha jî ez li hember van tiştan xwe danaxim. Na! Bi yekcar ez xwe danaxim. Ji bo çi? Ez ji we ne jartir û bê îmkantir im. Ez malbat, nan, rihetî û meriyên xwe tew naynime bîra xwe. Ez bi vî rengî li namûsê dinêrim, bi vê namûsê hûn li dora me civiyan. Hûn dibînine niha kes nêzîkî we nabe, kes nikare we bitirsîne. Hûn dirûşmeyan bilind dikin, hûn civînên mezin çêdikin. Belê, girîng e mirovê Kurd ji niha û pêve bi vî awahî be, dema ku yekî bi te re got bireve, bêje ez narevim, dema yekî got mîna berê be, bêje ez mîna berê nabim, dema yekî bi te re got ev ne yê te ye, bêje yê min e, yekî got na, bêjê erê... dema tu bi vî rengî bû yî, hingê tu dikarî namûsa xwe biparêzî û li dawiyê serkevtin ji bo te ye.

30 Milyon însan bê welat û bindest nabe, bê partî û seroketî nabe, nabe... nabe û nabe! We ev rastiya dît û we li ser vê rastiyê çend gav avêtin. Heya serkevtinê hûn ê xurt bimeşin. Hûn niha dibêjin "em bi te re ne". Ez dizanim hûn ji bo çi bi min re ne. Hûn dixwazin bi xwe re bin, ji bo vê hûn bi min re ne. Hûn dixwazin xwe bi yekkin, bi hêzkin, ji bo vê hûn bi min re ne. Ez jî bi we re me. Em narevin, ji bo yekîtiya we, ji bo xurtkirina we em heya dawiyê hene. Mîna hinkan em jî dikarin bi xwe û bi we bilîzin, em jî dikarin xwe bavêjin hembêza dijmin û li ber wan bigerin... Lê hema em nakin, ji ber ku me soz daye şehîdan, me soz daye gelê xwe, em ê heya dawiyê girêdayî sehîd û gelê xwe bin. Serokên din xwe avêtine hembêza dijmin, gel hinekî qîmet da wan, wan jî xwe rezîl kirin û bi hezar awahî bi rûmeta gel lîstin. Lê hema em nakin. Ji ber vê yekê dibe ku hinekî seroketiya me we biêşîne, em we derbasî şer dikine, şer jî ne hêsan e, şer zor e. Em ê ji pêre barê we giran bikin, hûn ê hîn pir weha di riyan de bimeşine û derkevine çiyan, hûn ê hîn pir birçîbûn, tîbûn, serma û germayê bibînine. Dema min dest ji jiyana xwe ya kesanî berda, ji sedî-sed ji bo we bû. Hûn tev dizanin kes hebûna me qebûl nake, ne dijmin qebûl dike û ne jî dost.

Me ji bo ku em însan werin hesibandin gav avêt. Niha her kes, heya bi dijmin jî dibêje, Kurd hene û Kurdistan heye. Hûn jî dibêjin, berê we newêribû bigota. Me hûn gihandine vê raddeyê (mistewa).

Belê, divê serok û partî ji bo gel bin, ne gel ji bo wan be. Heya niha gel ji bo serokan û partiyan bûye. Dema berê, serok tiştekî bi çûk dikir digot gel ji bo min e, ez her tişt im. Me hinek tişt dane dest we, ji tevayî serok û partiyan bixwazin, bila ew jî hinek tişt bidine dest we. We baş naskir seroketiya ji bo gel çawa ye. Rê nedin tu kesî, bila kes bi navê welatparêziyê bi we nekene, bila bi hebûn û rûmeta we nelîze. Divê hûn însanan bipîvin, bila her kes xwe li ser serê we neke serok. Min gelekî ji we re li ser dîroka xwe got, ez tim dibêjim me ji tunebûnê dest bi xebata xwe kir, niha hûn bûne çekeke mezin. Yekî ne digot welat heye niha cîhan tev hebûna welatê me dipejirîne. Berê di çiyayên Kurdistanê de mehkûmekî nikaribû xwe veşarta, niha bi hezaran gêrîllayên ARGK çiyan diparêzin û li dijî dijmin şer dikin. Berê dijmin em mîna kelmêşan jî nedihesibandin, niha rêza me digre. Ne ku ji me hez dike, yan jî mirovahiyê diparêze. Na ji ber ku em

> "30 Milyon însan bê welat û bindest nabe, bê partî û seroketî nabe, nabe... nabe û nabe! We ev rastiya dît û we li ser vê rastiyê çend gav avêtin. Heya serkevtinê hûn ê xurt bimeşin. Hûn niha dibêjin 'em bi te re ne'. Ez dizanim hûn ji bo çi bi min re ne. Hûn dixwazin bi xwe re bin, ji bo vê hûn bi min re ne. Hûn dixwazin xwe bi yekkin, bi hêzkin, ji bo vê hûn bi min re ne. Ez jî bi we re me. Em narevin, ji bo yekîtiya we, ji bo xurtkirina we em heya dawiyê hene. Mîna hinkan em jî dikarin bi xwe û bi we bilîzin, em jî dikarin xwe bavêjin hembêza dijmin û li ber wan bigerin... Lê hema em nakin, ji ber ku me soz daye şehîdan, me soz daye gelê xwe, em ê heya dawiyê girêdayî sehîd û gelê xwe bin."

jî bûne hêz û quwet. Nikare mîna berê me qir bike. Êdî ji dest nayê, ku bikaribe me hilîne.

Hûn tev dizanin, berê ku gelê Kurd serî hildida, mehekê du mehan dirêj nedikir û têk diçû. Ez naxwazim bi dorfirehî bibêjim me çi kir û çi nekir. Me tiştekî weha mezin nekiriye. Sebeba ku heya niha hûn bi sernexistine seroketiya sexte bûye, hûn ê rê nedine vê seroketiyê. Bingeha me danî ne ji bo îro ye, ji bo sed salî, hezar salî ye. Dîsa jî ne bes e, hûn ê bi xwe zarokên xwe mezin bikin, bi xwe serokan biafirînin. Dema ku baş bû û karibû seroketiyê bimeşîne, bêjin li ser ser û çavên me. Dema ku bi xebatê jî lîst, bêjin dûrkeve ji ber çavên me. Madem hûn min serok dihesibînin, gotina min ji we re ev e. Hûn ê bi xwe serokan peyda bikin û xebatê bidin meşandin. Em îro hene siba tune ne. Dema ku gel radibe ser piyan girîng e serokên xwe jî çêbike, biparêze û têxe bin çavdêriya (muraqeba) xwe. Mebêjin bila ji jor ve biryar were, li benda biryara jor nemînin. Hûn bi xwe jor in. Gava yê ku we kirî serok nikaribû seroketî bikira, wî daxin û yekî din rakin. Di 3 mehan de rakin, di 6 mehan de rakin. Li dora xwe binêrin hinek kes xwe mîna axan dikine serok, bi salan dimînin û heya ji dest wan tê bi seroketiyê dilîzin. Serokên weha dernexin. Axayên nuh ji xwe re çênekin. Axa bi me negerek in. Çima wê her dem ên ne baş li pêşiyê bin, axaye û pênc peran nake, seroketiyê dike. Seroketiya bi vî rengî gel dajo qirkirinê. Eger êla (eşîreta) we hebû, we dît serokê eşîrê nikare bimeşe, wî bixînin û yekî durust û xurt ji eşîra xwe re bikin serok. Bila serokên sexte bi qedera we nelîzin. em jî li pişt we ne. Bê tirs gava xwe bavêjin.

Heya ku dostên me li cîhanê pir bibin, divê berî her tiştî baweriya me bi me hebe. Xwe bi dostaniya derve ve girênedin. Berê tim ji me dipirsîn. "Gelo Sovyet bi me re ye lê na?" Ez niha eşkere dibêjim, Sovyet ne bi me re ye. Bi me re be, ne bi me re be jî, em tu pêwîstiyê nadin vê yekê. Bi dijmin re be jî em tu pêwîstiyê nadinê. Seriyên xwe bi pirsên weha re neêşînin. Em qîmetê didine dostan, lê hema yê ku naxwaze dostaniya me bike, pir li ber negerin. Dostaniya tewrî mezin di nava me bi xwe xwe de ye.

Berê digotin, dewletek alîkariya me neke, em nikarin gava xwe bavêjin. Niha hûn bi xwe dibînine, tevî ku cîhan tev li hember me bû jî, me çawa gav avêtin. Me bi xwe bi bîr û baweriya xwe barê xwe hilgirt. Me xwe gihandiye nîva damezirandina dewletê. Ev çi îspat dike? Mirov dikare bike. Yekî ku baweriya xwe bi gava davêje hebe, bi xwe nekene û xwe nexapîne, bi dil û can canfedayê doza xwe be... ne ku dinya alîkarê wî be, na! Dixwazî bila dinya li dijî wî be jî, wê dîsa bi serkeve. Taybetiya PKK ya pêşemîn jî ev e. Eger em weha bi yek hêz rabin, em ne mahtacê tu kesî ne. Em naxwazin bi destên xelkê rabine ser piyan, bila kes bi piyên me negire û me nemeşîne, ev ne meşa gel e. Wê îro bi destên te bigrin û siba te berdin, wê tu bikevî, ev ketin jî ketina mirinê ye.

Ez bi xwe, ji bo ku we bibînim mirinê didime ber çavên xwe û têm. Dîtina we li cem min, bedelî dîtina sed deweletî ye. Hûn dibînin, ez xwe erzan nakim û naçim li ber xelkê nagerim. Ez ne tembel im, na! Lê hema dilê min naxwaze. Kesên din, dema ku xeberek dighê wan ku dewletekê dawetname ji wan re şandiye, difirin diçin. Ha li vir, ha li wir, êdî bûne lîstik.

Di destpêkê de min giranî da ser xwe, di piştre min giranî da ser PKK, niha jî em giraniyê didine ser we. Ji niha û şun ve hinek li cîhanê bervî me tên, bûne dost li ser ser û çavan, na ku nebûne dost, bila li cihên xwe rûnin û ziyanê negihînine me. Dîsa ez dibêjim, ew serokên sexte nêrîneke şaş di nava gel de belav kiribûn, digotin eger dewletek alîkariya me neke em nikarin rojekê bijîn. Niha eşkere bû ku ne rast e. Dema seroketî, partî û gel bibin yek dil û yek can, bibin yek bîr û yek bawerî, li dawiyê wê xwe bigihîne serkevtinê. Cihanê dostanî kir baş e, alîkarî da baştire, divê em li ber wan negerin, bila ew ji me bigrin. Gerek e cîhan ji şoreşa Kurdistanê tecrûbeyan bigre. Bila ew ji me hînî mirovahiyê bibin, ew ji me hînî serxwebûn û azadiyê bibin... tiştê rast ev e.

Em ê bi vî awahî bimeşin. Ji pir aliyan ve li ber çavan e ku ev meşa rast e. Xebata me heya vir rast hatiye, şerê me heya niha li ser bingeheke rast xwe gihandiye vir. Ji vê û şun ve di meşa we de, di şerê we de serkevtin e.

Ev 7 salên derbasbûyî, şerê li meydanê di navbera gêrîllayên ARGK û dijmin de bû, êdî niha şerê we û dijmin e, divê hûn xwe ji bo vê amade bikin. Bi min û partiyê tenê şer bi sernakeve, şer bi we bi serdikeve. Lewma, eger em nekevin şaşiyên mezin, seroketiya me rast were meşandin, hûn jî xwe di şer de xurt û egîd bihêlin, ev salên li pêşiya me salên serkevtinê ne. Bi çi awahî û ji kîjan alî ve mirov lê dinêre bila binêre, salên werin, salên me ne, salên azadiyê ne. Dinya bibe yek jî nikare meşa me ya serkevtinê birawestîne. Heke em bi xwe xwe navêjine erdê û bi xwe nelîzin, ne gengaze meşa me were sekinandin. Ji bo vê yekê dê gavên me ji berê xurttir bin. Îro ji duh xurttir, duh ji hemû rojên derbasbûyî xurttir û siba ji îro xurttir. Ev islûba PKK ye, islûba seroketiya rast ev e.


Wêne: Berxwedan

Madem baweriya we bi me heye, baweriya me jî heya dawiyê bi we heye. Baş bizanibin, em zû-zû baweriya xwe bi kesan neynin, lê di tecrûbeya xwe de me têderxist, dema şer nebe şerê gel, em nikarin Kurdistaneke serbixwe û azad ava bikin, lewma me baweriya xwe bi we anî.


Wêne: Berxwedan

Ji niha û şun ve amadekariyên me ji bo damezirandina dewletekê ne, nebêjin em nikarin dewletê îdare bikin, bila ji derve hinek werin seroketiya me bikin. Na! Ev ne rast e. Hûn ê bi xwe bibêjin "em dewlet, em hikûmet". Kom bi kom xwe bicivînin û xwe îdare bikin, qedera xwe nedin dest kesên din. Bi xwe bimeşin, bi hêza xwe rabine ser piyan, bila kesek ji derve we nemeşîne, dema ku mirov bi xwe nemeşe nikare bi serkeve.

Dem dema me ye. Heya ezmanan serê xwe bilind bikin, merbendan biqetînin û bê tirs û dudilî gava xwe bavêjin. Kurdistaneke serbixwe û azad mîna guleke rengîn bi me re dikene. Rê nedin tu kesî, bila kes li pêşiya we nebe kelem, bipelixînin û bimeşin. Ez heya dawiyê bi vê meşa we re me, heya niha ez ji bo we bûm, ji niha û şun ve jî ji bo we me. Hûn jî, bi xwe ji bo serkevtin û serfiraziya xwe bin, hûn bi xwe ji bo serxwebûn û azadiya xwe bin.

Şehîd û şehîd, divê tu caran şehîd neyên ji bîrkirin. Ew xort û keçên ku temenê (imrê) wan di navbera (20-25) salî de bûn, ji bo ku ev meşa gel nesekine xwîna xwe xelatî Kurdistanê kirin. Heya ku giyan di min de heye, ez heya dawiyê bi wan re me. Heya ku hûn jî nekevine riya şehîdan em tu caran dest ji we bernadin. Dîsa em soz didim şehîdan, ji bo ku tola wan hildin û xwîna wan li erdê nehêlin, em kêlî bi kêlî li ser riya wan in. Heya ku em digihêne armanca wan ez nefes bi nefes bir wan re me.

Em di bin seroketiya şehîdan de seroketiyê dimeşînin. Serokên rast şehîd in. Mirov nikare bibêje ew mir in, na! Her yek ji wan bû hezar kes, her yek ji wan bû hêza şerê gel, ji ber vê yekê ez dibêjim hûn şehîdan temsîl dikin, hûn tu caran jî namirin.

Wê jiyana we bibe jiyana şehîdan, jiyana rast ev e. Ji vê jiyanê bêhtir jiyan li me heram in. Ji ber vê yekê ez dibêjim û sozê didim, wê tu kes bi xwîna şehidan nelîze. Çi dikin bikin, lê hema bi xwîna şehîdan nelîzin. Li ser xwîna şehîdan tiştekî tenê çê dibe, ew jî damezirandina Kurdistaneke serbixwe û azad e. Yê ku dibêje ez bi xwîna şehîdan re me wê ji bo vê armancê bimeşê. Ji 7 salî heya 70 salî wê di riya sehîdan de bimeşin, çare jê bêhtir tune.

Şehîd hêza tewrî mezin in, şehîd jiyana herî bi rûmet in, şehîd cesareta berî mezin in. Hebûna min bi xwe bi van şehîdan re ye. Yên ku tirsa mirinê şikandin û em xurt kirin şehîd in. Ên ku tengasiyên mezin dîtin şehîd in. Mirovên tewrî bilind şehîd in. Soza me soza wan e. Mayîna min ji bo tolhildana wan e, ji bo jiyana, ji bo ew dilopa xwîna wan e. Ez heya dilopa xwîna xwe ya dawiyê, heya nefesa xwe ya dawiyê bi wan re me, bi wan re me... û bi wan re me.

Dîsa, bîranîna şehîdan seroketiya me ye. Em ê heya ku ji dest me tê, we di bin seroketiya wan de bimeşînin. Nebêjin em êşiyan, êşa herî mezin şehîdan dît. Girîng e em soza wan bînin cih, dema me anî cih jî, em dikarin bibêjin me mirovahî bi dest xwe ve anî, em dikarin bibêjin me Kurdistan serbixwe kir û gelê Kurd azad kir.

Dijmin çi dike bila bike. Carê ev gel rabûye, di cîhanê de jî gelê Kurd bi egîdî û cesaretê li pêş her gelî ye. Heya niha bê çek bû, bê polîtîk bû, niha bi çek bû ye, bi polîtîk jî bûye.

Eger dijmin bi rastî mirov e, bila were em pirsa xwe bi aştiyê çareser bikin. Na ku ne mirov e jî, em li meydana şer egîd in, heya serxwebûn û azadiyê em li dijî wî di şer de ne. Em nereviya ne û narevin jî. Ev biryara me ye, biryara me jî biryara serketinê ye.

Li dawiyê silav li 7 saliya şerê gel, silav li gelê Kurd ê egîd û qehreman. Em soz didin, salên ji pêre salên serkevtinê ne. Soz didim û pêktînim. Ji we jî dixwazim, hûn berî her tiştî bi sozên xwe re bin. Nebêjin em êşiyan, em westabûn, na! Rojê deh şehîd herin, em ê sedî di şûna wan de bi cih bikin. Bila tirs tune be. Bila dijmin bizanibe, em ji 30 mîlyonî amade ne 15 mîlyonan şehîd bidin. Em ji şehîdbûna ji bo Kurdistaneke serbixwe û gelekî azad natirsin, em ji mirinê natirsin.

Jiyana me ji bo Kurdisntê ye, Kurdistan jî ji bo jiyana me ye. Û ji her demê bêhtir em dikarin bibêjin: **"Bijî 7 saliya 15'ê Tebaxê!", "Bijî meşa gel a ji bo serxwebûn û azadiyê!", "Bimre kedxwarî, dagîrkerî û dijminê hezaran salan!", "Bimre xayînên hezran salan!", "Bijî seroketiya gel, seroketiya Partiya Karkerên Kurdistan!"** Dîsa cejna we pîroz be û heya dawiyê bi can, bi xwîn em bi hev re ne.